*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (236) 23-08-2014 Buha (150) Tûmen*






PDKÎ

## Deqa nameya birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ ji bo rêzdar Teyib Erdoxan:

**Rêzdar/ Receb Teyib Erdoxan**
**Tevî rêz û silavan!**

Em kêfxwş in bi hilbijartina we ji aliyê gelên Tirkiyê ve wekî serkomarê nû yê vî welatî.

Pêngavhilgirtina we di demên derbazbûyî de, li derheq hewildan bo çareseriya kêşeyên Tirkiyê, û yek ji wan kêşeya Kurd ji riya aştî û diyalogê ve, vê hêviyê di dilê me û Kurdên akinciyê Tirkiyê de bi hêz dike ku cenabê we yê rêzdar pêngavan bo piraktîze-kirina wan sozan hildigrin ku di dema propagendeya hilbijartinê

Dom R: 2

# *PDKÎ xwendingeha şoreşê ye*




**Kurdistanmedia: Rêûresma taybetî ya 25'ê Gelawêjê, 69'emîn salvgera avakirina PDKÎ di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de bi rêve çû.**

Ew Rêûresm bi beşdariya endamên rêberî, kadr û pêşmerge û malbatên wan di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de bi rêve çû. Ew rêûresm bi xwendina sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtina ji riha pak ya şehîdên riya rizgariya Kurdistanê dest pê kir.

Piştre birêz Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ bi vê boneyê ve axavtinek kir. Naweroka vê rêûresmê pêk hatibû ji xwendina peyamên Yekîtiyên Jinan, Ciwanan, û Xwendekaran, û xwendina çend sirûdên şoreşgerî, û herwisa çend stranên folklor, û di dawiyê de jî şahî û govendeke giştî hebû, ku beşdaran bi vê şahiyê dawî bi rêûresma 25'ê Gelawêjê anîn. Hêjayî basê ye ku deqa axavtina rêzdar Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ di rûpela 4'ê de hatiye bilavkirin.





## Sergotar

# PDKÎ û berjewendiyên neteweyî

Şehab Xalidî

Dema ku bas tê ser parastina berjewendiyên neteweyî, tu partiyek di Kurdistanê de nine ku singê xwe nede pêş, û bi şanazî ve pesna siyasetên xwe derheq parastina berjewendiyên neteweyî neke, û xwe li serveyî partiyên din ên Kurdistanî û renge ji xwe jî nîştimanî û neteweyîtir re nezane!.

Dema ku bas ji siyaseta parastina exlaq di siyasetê de tê kirin, êdî her yek ji wan partiyan dibin pêşengê exlaq di siyasetê de.

Lê rûpelên dîroka her yek ji wan partiyan bixwe baştirîn belge ye bona dadwerîkirina li ser neteweyî û nîştimanîbûna wan partiyan û berçavgirtina exlaq di siyasetê de.

Bi xweşî ve PDKÎ yek ji wan partiyan e ku rûpelên zêrîn yên dîroka wê bi başî diselimîne ku vê partiyê tu carî berjewendiyên neteweyî nekirin goriyê berjewendiyên partiya xwe heya roja îro.

Her niha ku PDKÎ berjewendiyên Kurdistana başûr diparêze û heya amade ye ku bona parastina deskevtên neteweyî û nîştimanî yên vê para Kurdistanê bi kiryar here qadên şer li dijî terorîstan û dagîrkerên xaka Kurdistanê, bê guman ew yek belgeyek herî baş û xûya li ber çavên dost û dijminên vê partiyê ye.

Her eva ku PDKÎ amade bû ku bi bê bilindkirina alaya hizbî, here jêr sîvana Wezareta Pêşmerge de, û wek hêza pêşmergê Kurdistana Başûr şer ji bo parastina deskevtên neteweyî bike, eva pirr giring e.

Lê me dît ku hinek partî hebûn ku bi alayên taybet bi partiya xwe çûne bereyên şer, ku ew hereket şêweyek ji reklam bo partiyên wan têde hebû, ku hewce nake di qonaxên wiha hestiyar de bê peyrewkirin.

Lewra em şanaziyê bi PDKÎ û siyasetên wê û rêberên wê yên şehîd û rêbaza wê dikin, û dibêjin bijî PDKÎ parêzerê Kurd û Kurdistanê.

# Daxûyaniya hevbeş ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û Komeleya Şoreşgêr ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê bi boneya 28'ê Gelawêj 35'emîn salvegera biryara cîhada Xomênî li dijî gelê Kurd di Kurdistana Îranê de






**Hevwelatiyên tekoşer!**

35 salan berî niha wate li meha Tebaxa sala 1979'an (28'ê Gelawêja 1358) bi biryara Xomênî rêberê Komara Îslamiya Îranê, yê ku gihîştibû ser deshilatê, hêzên çekdar ên vê deshilatê êrîşî ser Kurdistanê kirin û şereke ne rewa û nexwastî bi ser gelê Kurd de sepandin.

Hêceta vê hêzê bo êrîşa li ser Kurdistanê komek boxtan û derevên bê bingeh û rû li partiyên siyasî bû ku tenê bo handana hêzên xwe ên çekdar bû, ku bi lez amade kiribûn bona êrîşkirina li ser Kurdistanê. Li hemberî vê êrîşa hemû aliyane û ne rewa de, bergiriyeke sertaserî di hemû Kurdistanê de, li dijî Komara Îslamiya Îranê dest pê kir, ku ji hemû şêwazên xebatê, bi taybetî xebata çekdar pêk hatibû, ku piştî sê mehan Komara Îslamiya Îranê û Xomênî anîn ser maseya danûstandinan. Herçend ku ew gotûbêj û danûstandin bo Komara Îslamiya Îranê tenê bi armanca bêhnvedanekê bû ji bo xwe amadekirineke dubare û êrîşeke ser ji nû ve, lê di hemen dem de ezmûnên gellek giring ji bo Kurdan bi giştî û hêzên siyasî bi taybetî têde hebûn.

28'ê Gelawêjê herçend ku di dîrokê de weke rojekê hatiye naskirin ku Kurdistan dikeve ber êrîşa hêzeke serkutkar û bê rehm, lê di hemen dem de rojek e ku bergiriyeke rewa û berxwedaneke neteweyî ji dayîk dibe, ku heya niha jî bi awayên cur bi cur dom heye.

Kurdistana Rojhilat 35 salan berî niha civakek sekolar, vekirî û tejî ji rojname û çapemeniyên cur bi cur bû, û jin di ew qasê azadî û bi bê tu astengiyekê di çalakiyên civakî û hemû biyavên jiyanê de beşdarî dikirin, û kedkar û mamosta û tex û qatên din ên civakê mijûl bûn ku bi mifahwergirtina ji rewş û hewayê azad yê siyasî, xwe rêk dixistin û bergirî ji maf û berjewendiyên xwe yên rewa dikirin.

Di demekê de ku di bajar û bajarokên din ên Îranê de, baskê reş û biyom ê kevneperestî û zordariya siyasî ya xwe bi ser civaka Îranê de dikêşa, û Komara Îslamî nedikarî Kurdistanê weke giraveke azad tab bike.

Eva rastiyeke haşahilnegir e ku gelê Kurd bi tewahiya partiyên xwe yên siyasî ve, gellek hewil da ku bi riya aştîxwazane ve, daxwaziyên xwe bîne ziman û bona desteberkirina wan xebatê bike.

Lê gellek zû eşkere bû ku Komara Îslamiya Îranê tenê zimanê çekê dizane, û di sîstemekê de ku ew nûneratiya wê dike, tu cihek ji bo xebateke aştîxwazane ya neteweyî tuneye.

Dom R: 6

---




de, ji bo avakirina Tirkiyeyeke nû di asta çareseriya yekcarî ya kêşe û daxwaziyên rewa yên Kurdan, û geşekirina demokrasiyeke berfirehtir li Tirkiyê de, we dabûn, ku ew yek Tirkiyê di hemû warekî de ber bi pêş ve dibe.

Em ji proseya aştiyê ku niha di rojevê de ye, piştevaniyê dikin û em hêvîdar in ku hûn di vê erka giring de, ku we girtiye stûyê xwe, bi ser astengiyan de serkevin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekreterê giştî**
**Mistefa Hicrî**



# *Birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ: "Xebata Kurdan li her çar perçeyan de, li dijî çar dewletên bi hêz ku Kurd bi ser de hatiye parvekirin, zehmet e".*

## H: Rojnameya Xebat, hejmara (4615)

**Xebat: Kurdistan piştî şerê di navbera Osmaniyan û Sefewiyan wate sînorê niha yê di navbera Îran û Tirkiyê, ku bûye du beş, lê piştî şerê yekemîn ê cîhanî bûye çar beş, gelo sedema sereke ya vê parçekirina Kurdistanê ku bi serkirdayetiya welatên mezinhêz ên cîhanê bi rêve çû, vedigere ser çi?**

**Birêz Mistefa Hicrî:** Piştî bidawîhatina şerê yekemîn ê cîhanî, welatên mezinhêz yên serkevtî di şer de, sînorê deshilatdariya welatên dorandî ên şer di navbera xwe de parve kirin, ku di encama vê parvekirinê de beşek ji xaka Kurdistanê ku li jêr deshilata împeratoriya Osmanî de bû, di navbera du welatên tazeavabûyî yên Sûriye û Îraqê de hate parvekirin, ku beşek her li jêr deshilata welatê Tirkiyê de ma ku li ser wêraniyên dewleta Osmanî hatibû avakirin, û beşek jî li jêr deshilata hikûmeta Tehranê de ma ku bi vî awayî Kurdistan bû çar beş.

**Xebat: Kurd neteweyek bi dehan milyonî ye, û xakek berfireh û bi bereket heye, hertim tê gotin ku welatên mezinhêz wan neteweyan dikin xwediyê welatê xwe, ku dikarin bi awayek ji awayan qazancê lê bibînin, çima di demekê de ku Kurdistan samana wê jî zaf e, welat li ser haşakirina li ser mafên Kurdan berdewam in?**

**Birêz Mistefa Hicrî:** Eva rast e ku Kurdistanê xakek berfireh û nifûsek zaf têde heye, û gellek jî bi bereket e, lê di heman demê de ji bîra me neçe ku ew welatên ku Kurd jî bi ser wan de hatiye parvekirin, welatên bi xêr û bêr in, û berjewendiya wan bo mezinhêzan ji berjewendiya Kurdistanê zêdetir e, lewra di pêxema parastina berjewendiyên biçûk (Kurdistan), naxwazin ku berjewendiyên wan yên mezin (welatên mezin) ji dest wan herin. Ji bilî vê yekê pirsa emnî û têkdana sînorê wan welatan û komek fakterên din jî, di nav biryardanên mezinhêzan de hene ku têne berçav girtin, ku yek ji wan fakteran pêkanîna mecaleke baş ya siyasî ye, ku bi sedema guhertinan bo neteweyeke parvekirî yan jêrdesteyê welateke bihêztir pêk tê, wek mînakek baş di vê derheqê de em dikarin Ermenistan û Azerbaycanê nav bibin. Dema ku di dawiya şerê sar de, welatê Soviyetê şikest xwar, û hikûmeta wê têk çû, derfetek baş bû ji bo piraniya wan neteweyên ku xaka xwe hebûn, û heya wê demê li jêr deshilata Soviyetê de dijiyan, lê ew cudabûn, û serxwebûna xwe jî ragehandin, û welatên Rojava jî bi taybetî Amerîka ku ew dabeşbûna di berjewendiya xwe de dizanîn, ew welat bi fermî nas kirin, lê heya niha rewşa siyasî ya bi vî awayî bo Kurdan nehatiye pêş.

**Xebat: Xebata Kurdan li her çar beşên Kurdistanê bi giştî xebateke ji hev veqetiyayî bûye, û hekî pêwendiyek jî hebûye, zêdetir teşrîfatî bûye, herçend carna du parçeyên Kurdistanê pêkve xebatê dikin, bo mînak niha beşek ji hêzên Bakûr û Rojavaya Kurdistanê pêkve xebatê dikin, yan di rabihurî de başûr û Rojhilata Kurdistanê pêkve xebat kirine, û ...hwd, gelo xebatkirina Kurdan bi awayekî yekgirtî li her çar perçeyên Kurdistanê di rewşa niha de, di cihê xwe de ye, gelo ew ji hev veqetiyana xebata Kurd, hokar nebûye bo paşvemana cîbicîbûn û sergirina xebata Kurd?**

**Birêz Mistefa Hicrî:** Her wek me qala wê kir, çend caran hebûye ku Kurdên du beşan bi awayê car caran alîkariya leşkerî bi hevre kirine li dijî yek ji hikûmetên dagîrker, lê ew alîkarî gellek berteng û demkî bûne, û bandoreke berçav li guherîna parsenga hêzan de pêk neanîne.

Yekgirtina hêza Kurd li her çar perçeyan, û heya di du perçeyan de jî, dibe sedema yekgirtina dewletan bo serkuta xebateke wisa ya yekgirtî. Mînakên bi vî rengî me di dîroka xebata gelê Kurd de dîtine. Lewra xebata Kurdan li her çar perçeyan de, li dijî çar dewletên bi hêz ku Kurd bi ser de hatiye parvekirin, zehmet e.

**Xebat: Bi berçavgirtina rastiya Kurdistanê di dema niha de, û nirxandina aliyê siyasî, aborî û civakî di başûra Kurdistanê, ragehandina dewleta Kurdî, di dema niha de, heya çi qasekî nêzî rewşa heyî ye, û wek hewcehiyekê dibe çav lê bihê kirin?**

**Birêz Mistefa Hicrî:** Ez li ser vê baweriyê me ku di rewşa niha de, ku bi kiryar em dikarin bêjin ku hikûmetek bi wateya xwe ya rastîn di Îraqê de nine, û nahê çavnihêrkirin bi wan zûkatiya Îraq rûyê aramiyê bi xwe ve bibîne, Kurd jî deshilata xwe bi ser hemû xaka xwe de heye, û xwediyê petroleke zaf e, ku eva bixwe di warê darayî û siyasî de faktereke giring e bo bingehdanîna dewleteke serbixwe, lê ji bilî wan bo ragehandina serbixweyiya Kurdistana Başûr çend fakterên din jî gellek giring in, û pêwîst e ku bêne berçavgirtin.

1-yekrêziya xelk û rêkxirawên siyasî bi giştî bi armanca îradeya pêkanîna vê serxwebûnê
2-Amadeyiya xelkê bo tehemulkirina wan zext û kêşeyên ku neyarên serbixweyiya Kurdistanê jêre diafirînin, wek daxistina sînorên xwe bi rûyê Kurdistanê û pêkanîna astengiyan di hemû warekî de, û pîlanên din aliyê kêm li kurtheyam de, her wek şehîd Dr. Qasimlo dibêje ku gelêk ku azadiyê bixwaze dibe nirxa wê jî bide.
3- amadebûna welatek cînar weK -Tirkiyê ku vê hikûmetê bi fermî nas bike, û riya wê ber bi cîhanê ve weke.

# *Deqa peyama birêz Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ, bi boneya 25'ê Gelawêjê*

**Hemwelatiyên hêja!**
**Beşdarbûyiyên birûmet!**

Rê bidin ku ez bi boneya 25'ê Gelawêjê, salvegera avakirina PDKÎ, tevî silav û rêzan, pirr bi dil pîrozbahiya vê roja dîrokî li we bikim. Her di vê boneya pîroz de jî ez silavan dişînim bo riha pak ya şehîdên riya rizgariya gel û bi taybetî şehîdên partiya me ya tekoşer, girtiyên siyasî ên berxwedêr, kadr û pêşmerge û endamên partiya me ku bi xweragiriya di pêxema armancên neteweya me de, sebebkarê berdewamiya vê rêbaza pîroz in.

**Hemwelatiyên birêz!**

69 sal berî niha di rojeke weke îro de, di bajarê Mehabadê de, PDKÎ li ser bingeha Komeleya J-K, avabûna xwe bi bilavkirina bernameyeke heşt madeyî ragehand ku demokrasî, mafê neteweyî, dadperweriya civakî, û hevpeymaniya gelên Îranê, naweroka vê bernameya heşt madeyî pêk dianî. Eva yekem car bû ku di dîroka pirr ji evraz û nişîv ya gelê me de partiyek bi bernameyeke rohn û pêşkevtinxwazane dûredîmena armancên xwe dixiste pêşberî civatên xelkê, û ji bo piraktîzekirina vê pirogramê daxwaza piştevaniyê ji wan dikir.

**Xûşk û birayên hêja!**

PDKÎ her di destpêka avabûna xwe de gellek deskevtên bi nirx hebûn, û di heman demê de jî tûşî gellek karesatan bû. Komara Kurdistanê herçend ku temenê wê kurt bû û tenê 11 mehan dom kir, lê bû sedema vê ku gelê me di beşek ji nîştimana xwe de qedera xwe bi destve bigre, û ew herêma ku Komara Kurdistanê têde hate avakirin, bû çepera bergirî ji azadî û pêşkevtin li sertaserî Îranê de, û bû cihê hêviya Kurdan di hemû parên Kurdistanê de.

Rêberîkirina xebata çekdarane ya salên 1967-1968 (1346-47) li dijî dîktatoriya Mihemedriza Şah di serdemekê de ku Îran weke girava aram ya Rojhilata Navîn dihate binavkirin, û rêberîkirina bergiriya rewa û cesûrane ya gelê Kurd li hemberî biryara cîhadê ya Xomênî ji bo qirkirina Kurdan û bi dehan serkevtinên din ji deskevtên PDKÎ ne.

Di heman dem de jî dîroka partiya me şahidê karesateke weke hiloşîna Komara Kurdistanê, terorkirina rêberên me yên mezin û şehîdkirina bi dehan hezar kes ji kadr û pêşmerge û xelkê Kurdistanê jî bûn. Lê ne serkevtin û ne jî karesat nebûne sedema vê ku ji riya xebata ji bo mafê neteweyî û demokratîk ên gelê xwe dûr bikevin, û hemû serkevtin û têkşikan, me kirne ceribandin ji bo xebata partiya xwe. Partiya me ji serkevtinan jixwerazî nebû, û ji têkşikanan jî bê hêvî nebû, belkû piştqahîm bi piştevaniya xelkê kurdistanê riya xebatê domandiye.

**Rêzdarno!**

35 salan berî niha li 28'ê Gelawêjê de Xomênî biryara cîhadê li dijî gelê Kurd derkir, û destê kirêgirtiyên xwe vekirî hêla da ku bi gellek cînayetên bi sam neteweya me çavtirsandî bikin û bêxin qedeman. Lê lihevciviyana me li vir, wate bo bîranîna 25'ê Gelawê, 69'emîn salvegera avakirina PDKÎ, nîşaneya têkşikana wê stratejiya rejîmê û sozdan ji bo berdewamiya li ser xebatê ye.

**Hevalên rêzdar!**

Herwek dizanin, di her gereke hilbijartinên bi berçav ên rejîmê de, berbijêrên serkomariyê, û dest û pêwendiyên wan bi dana sozên bi derev bi xelkê, wisa nîşan didin ku bi hatina vî yan wî berbijêrî, guhertin bi ser siyasetên Komara Îslamiya Îranê de tên, lê her li gorî yasayên Komara Îslamiya Îranê jî, tu şêwe guhertinek, di çarçoveya deshilata berbijêran de nine, lê bi vî halî jî, hejmarek berçav ji xelkê, bi vir û derevên wan têne xapandin, û bi hêviya guherîna siyaseta serkutkerane û çewsînerane ya rejîmê diçin ser sindûqên dengdanê, lê ew hilbijartin tu qazanceke erênî ji bo berjewendiya xelkê têde tunebûye, belkû eva rejîm bûye ku mifah ji wan hilbijartinan wergirtiye, û di her qonaxek ji jiyana siyasî ya xwe de, dest xistiye ser mohreyeke dezgeha xwe ya tepeserkar, ku ji bo vê rewşê hewcehiya wan pê hebûye, û bi şanosaziyê xelk pê xapandine, hekî ne dîroka hilbijartinên Komara Îslamî selimandiye ku hatina mohreyên cuda tu tişt neguherî ye, û di rastî de bi guhertina nav, nawerok nehatiye guhartin. Bo selimandina vê rastiyê jî her ew qas bes e ku em bizanin ku ya hatiye serê çalakên siyasî û çandî di serdema serkomariya Ehmedînijad de, di serdema Rûhanî de zêdetir jî bûye, û di encama siyasetên zêdexwaziyê yên wilayeta feqîh de, jiyaneke bê deng û mat, û pirr ji koletî û sivikatî û êş û azar ji bo xelkê Îranê li pey xwe hebûye.



Komara Îslamiya Îranê di hewla xwe de ji bo bidestxistina çeka etomî ji bo garentîkirina mana xwe di bereberê vexwarina cameke din ya jehrê de ye, û gotûbêjên girûpa 5+1 û civaka navneteweyî di gel Îranê her wisa dom heye. Rejîm bi veguhastina beşeke berçav ji dorpêçên aborî, ji ser milên xwe ve bo ser milên xelkê, bandoreke karesatbar daniye ser jiyana xelkê, bi taybetî texa navincî û hejar, û rojane ber bi hejariya zêdetir ve diçe. Bûyerên herî nû yên çend mehên borî, ku encamên vê siyasetê ne, pêk tên jî: Birîna yaraneyan, jêhelçûna nirxa hilgirên têhnê (elektirîk, petrol û gaz), û enfilasiyon (helawsan).

Li gorî çavkaniyên rejîmê bixwe, nirxa wan hilgirên têhnê %25 zêde bûye, di demekê de, ku dema fîşa elektrîk û gazê ji bo xelkê anîne, jêhelçûna wê zêdetir ji %50 jî bûye. Birîna yaraneyan bandor li ser jiyana xelkê hejar hebûye ku beşek ji dahata wan ya rojane, ew yarane bûn, ku vê yekê nerizayetiyeke zaf di nav wan tex û qatên civakê de hebûye ku di encam de xelk bona peydakirina bijîwa jiyana xwe, bê şiyan in. Di warê çandî de her ew qas bes e ku reformxwaz di warê siyaseta çapemeniyê de, navê "Cehnema Çapemeniyan" li ser dewleta bi nav "tedbîr" û "omîd" (Hizr û Hêvî) ya Rûhanî danîne.

# Nerîna Lîderan



Nêçîrvan Barzanî:

**“Êrîşa DAÎŞ’ê li dijî Şingalê cînosayd e”.**



Karayilan:

**“Emê wisa li DAÎŞ’ê bidin ku poşman bibe”.**



Wekîl Mistefayêv:

**“PKK’ê Kurdistana Sor bi 4 milyon dolaran firot”.**



Steinmeier:

**“Em li dijî dewleteke kurdî li Kurdistana Başûr in”.**



**Rewşa Kurdistana Rojhilat:**

Her wek derbazbûyî rewşeke ewlekarî ya gellek tund di hemû bajarên Kurdistana Îranê de berdewam e. Girtin û zîndanîkirina çalakên siyasî û medenî û sepandina hukmê girtinê bi hêcetên curbicur û bê bingeh her dom heye. Îdam roj li pey rojê zêdetir dibin. Hewildan bo asîmîlekirina herêmên Kurdakincî, ji riya bernameyên taybetî yên televîzyon û kom û civînên ferhengî ve, heya radeya diyarîkirina xelatên taybet ji bo wan organan, ku di vê derheqê de çalaktir in berdewam e.

Komara Îslamî berdewam hewil dide ku di navbera neteweyên curbicur ên Îranê de tevdanîkariyan pêk bîne, bi taybetî di parêzgeha Urmiyê de, ku di wan dawiyane de bi zext û givaşxistina li ser Kurdan, bona rakirina navên kurdî li ser şeqam û dukanan û cihên giştî, û pêşgirî ji kirîna avahiyan û heya nûjenkirina avahiyên Kurdan, ku diyar e ku ew zext jî bi riya kirêgirtiyên Azerî ve dêxne ser Kurdan, armanc ji vê siyasetê, pêkanîna şer û tevdanîkariyan di navbera du neteweyên zulmlêkirî yên Kurd û Azerî de ye. diyar e ku berengarbûna di hemberî vê siyaseta qirêj de, erka li ser milên rewşenbîr û şoreşgerên her du neteweyan e.

Herçend ku rejîm bi awayekî çirr hewla helandin û kêmrengkirina nasnameya neteweyên bindest ên Îranê, bi taybetî neteweya mafxwaz ya Kurd dide, lê bi xweşî ve di vê siyasetê de bi tewahî şikest xwariye, û helwesta ciwanan, û hemû tex û qatên rojhilata Kurdistanê, li hemberî egera ragehandina dewleta Kurdî li başûra Kurdistanê, û piştevaniya berfireh ya wan û herwisa helwesta Kirmaşaniyan li derheq konserta Şehram Nazerî di vî bajarî de, mînakek nû ne ji geşekirina bîra neteweyî di Kurdistana rojhelat de, ku ew yek jî nîşaneya şikesta siyastên rejîmê ye di vê derheqê de.

**Rewşa aborî ya Kurdistana Rojhilat**

Cuda ji wan gemaro û zextên ku bi egera siyasetên çewt ên rejîmê ketine ser xelkê Îranê, û bandora rasterast ya wan li ser rewşa aborî û bijîva jiyana xelkê Kurdistanê heye, gemaroyeke din ya aborî bi sedema milîtarîzekirina Kurdistanê û siyaseta çewsandinê, û ferq û cudahîdanîna neteweyî ji aliyê rejîmî ve, di biyavên cur bi cur ên sermayeguzariyê di van herêman de heye.

Bo mînak di budceya sala 1393’an (2014) ya dewleta Rûhanî de, tu giringiyek nehatiye dan bi herêmên bêparkirî û jibîrkirî. Parvekirina nedadperwerane ya budce û danîna beşeke herî berça ya budceya Îranê bo neh parêzgehên pîşesazî ku di nawenda Îranê de hilketine, bi hêceta cîbicîkirina bernameya mezin ya avedankirinê, stratejîk û dahatsaz, beşek ji wan bernameyên malî û aborî û îdarî ye, bi awayekî ku para giştî ya parêzgehên Kurdistanê, (Uremiye, Sine, Kirmaşan, Îlam) Belûçistan, Xûzistan û herêma Turkemensehra (li derveyî pirojeyên pîşesaziya petrolê, ku ew jî tu qazanceke wê bo xelkê xwecihî yên wan herêman nine), nagihîje budceya yek ji wan parêzgehên nawendî û heya bo berhevkêşanê jî nabe.

Eva berevajiyê qewl û sozên Rûhanî ye li derheq kêmkirina êş û azaran, kêmkirina girjî û aloziyan, nehêştina ferq û cudahiyan û tepseriyan, û nehêştina hejariyê li parêzgehên bêparkirî de, (xeyrî sozên din ku taybet bû bi biyavên mafên mirovan, siyasî, olî, çandî, perwerdehî û...hwd) evane tu yek ji wan bi awayê rêjeyî jî nehatine cîbicîkirin.

Bi awayekî taybetîtir ku em têne ser

Kurdistanê, para Kurdistanê ji vê budceyê bi rêjeyeke zaf hatiye danîn ji bo pirogram û pirojeyên ewlekarî, û Parastin û Leşkerî û dem û dezgehên pêwendîdar. Hekî pirojeyek jî hebin, zêdetir di çarçoveya bername û stratejiyên ewlehiyê yên xwe de xerc dikin, ku ev yek jî dibe sedema vegerxistina hewlên xwe bona çalakiyên siyasî û medenî, û pêşgirtin ji her cure bizaveke siyasî li Kurdistana Rojhilat.

**Di warê mafên mirovan de:**

Ji destpêka sala 1393'an (2014) heya niha zêdetir ji 140 hemwelatî bi sedemên curbicur hatine gazîkirin û destbiserkirin, û 22 kes jî di bendîxaneyan de hatine bidarvekirin. 12 kolber hatine kuştin û 11 kes jî birîndar bûne, û bi sedema teqîna mayînan, 10 kes kêmendam bûne.

**Beşdarbûyiyên hêja!**

Di du salên borî de, serhildana xelkê li Sûriyê li dijî rejîma Beşar Esed, êrîşa DAÎŞ bo ser Mûsilê û çend parêzgehên Sunîakincî û cihgirbûna hêza pêşmerge di van herêmên Kurdistanî de ku diketin çarçoveya madeya 140 ya destûra Îraqê, û berdewambûna piroseya aştiyê li Tirkiyê, rewşeke nû ji bo van sê beşên Kurdistanê pêk aniye. Di derheq vê rewşa nû de, yekîtiya hêzên Kurdî û xwe dûrxistina ji tekrewiyê û xwendina bûyeran bi awayekî hûr, pêngaveke din me nêzî armancên me dike.

Ez bi hewce dizanim ku derheq vê rewşa nû de, helwesta rejîma kevneperest û dijî Kurd ya Komara Îslamiya Îranê, ku gellek caran bi derev û çewaşekarane rondikên tîmsahê ji bo Kurdên Îraqê rijandiye, û di heman dem de jî bê rehmane Kurdên Îranê bi hemû pêkhate û ayînzayan ve tepeser kiriye, raxînim berçav bona têgihîştina zêdetir ji riyakarî û fînd û fêlên vê rejîmê.

Balyozê Îranê li Bexdayê li derheq egera ragehandina dewleta Kurdî de, gefa daxistina sînoran li ser Kurdistanê, û heya gefa şerkirina mil bi milê hêzên Îraqê li dijî xelkê Kurdistanê xwar.

Di rojnameya "Comhuriyê Islamî" de, ku di roja 21.07.2014'an de hatiye bilavkirin, hatiye nivîsandin: Kurdên hişyar amade nînin ku cuda bin, û gefan li Barzanî dixwe û dibêje ku Kurdên aqil bi agirê serxwebûna nalîzin. Ji dîtingeha vê rewşa nû ve, PDKÎ her wek derbazbûyî piştevanê ber bi pêşveçûna xebata gelê me di hemû beşên Kurdistanê de dibe, û her erkek ku di vê derheqê de bikeve ser milê PDKÎ, û di şiyana wê de be, bi bê du dilî wê cîbicî bike.

Siyaseta PDKÎ eva bûye ku rêkxirawên beşên Kurdistanê bi berçavgirtina rewşa siyasî û civakî ya xwe, rê û rêbaza xwe û pêwendiyên xwe di gel dewletên cînar rêk bixin, bi mercekê ku ew siyaset zirarê li qazanc û berjewendiya beşên din ên Kurdistanê negehîne, ku bi xweşî ve, partiya me di vê derheqê de gellek berpirsane kar kiriye û li vê derheqê de em serbilind in.

Derheq diyarîkirina mafên çarenûsê ji bo gelê kurdistanê min jêve ye ku nûnerên beşên Kurdistanê di pêwendiyên xwe yên navneteweyî de pêdagiriyê li ser vî mafê rewa bikin, lê di heman demê de jî bidestvehatina her formek ji diyarîkirina mafê çarenûsê girêdayî ye bi rewşa her yek ji beşên Kurdistanê û biryara hewce di vê derheqê de, dikeve stûyê rûniştiyên wê.

Di derheq rewşa wan dawiyane ya Herêma Kurdistana Başûr û hewlên neyarên gelê me bona têkdana aramiya hêvîbexş ya vê herêmê ku êrîşên girûpa terorîstî ya DAÎŞ bo ser mal û halê hemwelatiyên Kurdistanê û bi taybetî hemwelatiyên herêma Şengalê, dawî mînak bû. PDKÎ her di destpêkê de bi hestkirina bi berpirsayetiya dîrokî ya xwe, û bi xwendina hûr ya bûyeran helwest girt û amadeyiya xwe ji bo her cure piştevanî û yarmetiyeke bi kiryar ragehand.

Di vê derheqê de şandina çendîn yekîneyên hêza pêşmerge ya PDKÎ bo beşdarîkirina li bereyên şerê parastina hebûna xelkê Kurd li Başûra Kurdistanê, dirêjiya nerîta şoreşgerane ya çendîn dehikan ji xebata partiya me û selmînerê îradeya hesinîn ya PDKÎ, bo domandina rêbaza şehîdên hizb û gelê me ye, û nîşan dide ku PDKÎ mekteba şoreşê ye, û heya ser jî wek alahilgirê serbilind ê xebat û qurbanîdan di pêxema bîra neteweyî di her çar parên Kurdistanê de dimîne.

Deftera Siyasî ya PDKÎ di derheq çûna hêzên pêşmergeyên PDKÎ bo şerê parastina neteweya me li başûra Kurdistanê, û amadeyiya kadr û malbat û endamên partiya me bo beşdarîkirina di vê bergiriya rewa de, û herwisa piştevaniya bê xemsarî ya civatên xelkê Kurdistanê li navxwe û li derveyî Kurdistanê, spas û pêzanîna xwe bo hemû wan dilsozan radigehîne, û şanaziyê bi riha cangorîtî û netewexwaziya wan dike.

**Amadebûyiyên rêzdar!**

PDKÎ bo gihîştina bi mafê çarenûsa xwe her di destpêka avabûna xwe ve heya niha sê erk girtine ser milên xwe:

1-Rêkxistina civatên xelkê Kurdistanê, û komkirina wan li jêr alaya PDKÎ de.

2-Girêdana xebata gelê Kurd di gel neteweyên din ên Îranê.

3-Hewildan bo rakêşana piştevaniya hêzên azadîxwaz li sertaserê cîhanê û navneteweyîkirina pirsa Kurd.

PDKÎ di heyama tekoşîna xwe de, ji bo cîbicîkirina van erkan tekoşîneke zaf kiriye, û gellek qurbanî dane, lewra heya niha xwediyê rêkxistineke berfireh di navxwe û li derveyî welat e. Yek ji bingehdanerên kongireya Neteweyên Îrana Federal, endam di UNPO û înternasyonala Sosyalîst de ye.

Li egera hewildan bo her guhertinekê di pêşeroja Îranê de, bi baldan bi pêgeha navxweyî û navçeyî û cîhanî û berçavgirtina vê rastiyê jî ku ji aliyê piraniya herî zaf ya xelkê Kurdistanê ve piştevanî jê tê kirin, roleke bi bandor û berçav dilîze.

Di dawiyê de bi baldan bi lerzokiya Komara Îslamiya Îranê û ezmûna dewlemend û rola mêhwerî ya PDKÎ di warê rêkxistin û yekxistina aliyên azadîxwaz ên Îran û Kurdistanê li çepera xebat bo rûxandina kelha stem û çewsandinê û bingehdanîna pêşerojeke rohn bo civaka xwe, bi hewce dizanim ku carek din pêdagiriya PDKÎ li ser cihgirkirina pirensîpên bingehîn ên xebata xwe, wate hewildan bo demokrasiyê, mafê çarenûsê, mafê mirov, dadperwerî, pêşkevtin, aştî û pêkvajiyan di civaka rizgarkirî ya piştî bi çok de anîna dîktatoriya wilayeta feqîh ducarî bikim. Herwisa hewce dizanim ku di 69'emîn salvegera avakirina PDKÎ de, em yad û bîra hemû şehîdên serbilind ên PDKÎ, wate Qazî, Qasimlo û Şerefkendî bilind ragirin, û di gel armancên wan ên pîroz, peymanê nû bikin û mizgîniyê bidin wan ku xortên îro ên partiya me ya şoreşger heya gihîştina bi kopka serkevtina yekcarî, û gihîştina bi hêviyên wan û hemû takên mafxwaz ê Kurd û Kurdistanê, di çepera bergirî û tekoşînê de dimînin.

**Her bi coş be 25'ê Gelawêjê 69'emîn salvegera avakirina PDKÎ**
**Hiloşe kelha terorîzm û dîktatorî û kevneperestiyê**
**Berdewam be jiyana gelan**
**Serkevtin ji bo xebata rizgarîxwazane ya Kurd û Kurdistanê**

---

Doma R: 2

Lewra gelê Kurd tu çareyeke wê nemaye, xeyrî vê ku dest bo çekê bibe û xebata pêşmergane li dijî êrîşkarên bo ser Kurdistanê dest pê bike, û bersiveke tund bide wan êrîşên Komara Îslamiya Îranê.

Qonaxa xebata çekdarane ya Kurdistana Rojhilat li dijî Komara Îslamiya Îranê tejî ye ji destanrêsiyên mezin, û qehremanetî û cangorîtiyê. Hemû aliyek baş dizanin ku Komara Îslamiya Îranê ji bo dagîrkirina her bihustek ji xaka Kurdistanê di gel çi xweragirî û berxwedanekê berbirû ye.
Li ser bingeha vê xebatê ye ku niha jî tevgera mafxwazane ya gelê Kurd di Kurdistana Rojhilat de, her berdewam û zindî ye.

evsal di demekê de em ber bi yad û bîranîna vê rojê ve diçin, ku gelê Kurd di Kurdistana Rojhilat, negihaye hêviyên xwe û her di jêr zextên siyasî, neteweyî, aborî û çandî de ye. Awayên xebat di kurdistanê de ji bo desteberkirina maf û azadiyan dom heye, û di hember de, girtin û îdam ji aliyê Komara Îslamiya Îranê ve dawî pê nehatiye û dom heye. Lewra di vê boneyê de em peyman û sozê di gel gelê Kurd di Kurdistana Rojhilat de nû dikin ji bo domandina xebatê heya bidestveanîna mafên siyasî û neteweyî yên xwe.

Hewce ye ku di vir de, li bereberê bîranîna 28'ê Gelawêjê salvegera derkirina biryara cîhadê li dijî xelkê kurdistanê, em qala êrîşa hovane ya hêzeke tundrew weke DAÎŞ bikin ku li jêr alaya ayîn, her wek Komara Îslamiya Îranê, xwîn û mala Kurdan helal dizane, û ji tu tawanekê li dijî gelê Kurd û mirovahiyê xwe naparêze.
Em cînayet û komkujiya xelkê medenî weke kêmaniyên olî ji aliyê dewleta Îslamî (DAÎŞ) ve, ku dikeve çarçoveya cînosayd û qirkirinê, bi tundî şermezar dikin. Di heman demê de, rêz ji alîkarî û bi hawar de hatina cîhana derve û xelkê beşên din ên Kurdistanê, bi taybetî Kurdistana Rojhilat dikin, ku bi awayên cur bi cur xwe nîşan dan. Di vê derheqê de piştevaniyê ji xweragirî û berxwedana xelk û hêzên pêşmergeyên Kurdistana Başûr dikin li dijî terorîstên DAÎŞ, û her wek pêştir jî me ragehandiye, em amade ne ji bo hemû alîkarî û piştevaniyekê, di biyavên cur bi cur ên Herêma Kurdistanê û deskevtên wê de.

**Serkevtin ji bo tevgera rizgarîxwaziya gelê Kurd**
**Hiloşe Komara Îslamiya Îranê**
**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Komeleya Şoreşgêr ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê**
**27.05.1393**
**18.08.2014**

# *"Gotin werin bo bereyên şer, em jî çûn, û piştre spasiya me kirin û ragehandin ku bereyên şer bi cih bihêlin, eva em jî vegeriyan. Me hez dikir ku zêdetir li wir maban, lê serkirdayetiya Kurd di başûra Kurdistanê de bixwe baştir dizanin ku berjewendiya Herêma Kurdistanê di çi de ye".*

**Piştî vê ku xaka Herêma Kurdistana Başûr kete ber êrîşa ne rewa ya DAÎŞ'ê, û ji aliyê wan ve li Şengalê komkujî li dijî Êzidiyan pêk hat, û di vê komkujiyê de wan rehm bi jin û zarokan û pîr û kalên Êzidî nekir, vijdana Kurdan bi vê komkujiyê hejiya, û her takekî Kurd û her aliyekî siyasî li dijî vê êrîşê helwest girt. PDKÎ yek ji wan aliyên siyasî bû ku bi kiryar hêza xwe şande bereya herî pêş ya şerê li dijî wan terorîstan. Di vê derheqê de me weke Agirî bi hewce zanî ku di gel birêz Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ û berdevkê Nawenda Emeliyatî ya PDKÎ hevpeyvînekê pêk bînin ku deqa hevpeyvînê bi vî awayî ye:**

**H: Arif Vêlzî**

**Pirs: Çawa bû ku PDKÎ ew helwesta dîrokî girt û hêz şande bereyên şer?**

**Bersiv:** Her wek di daxûyaniya Deftera Siyasî ya PDKÎ de hatibû, PDKÎ jêve bû ku ew yek pîlaneke herêmî ya gellek metirsîdar e ku li dijî Hikûmeta Herêma Kurdistanê hatiye darêtin, û cuda ji pîlan û êrîş û jinavbirina vê hikûmetê zirarê li berjewendiyên tewahiya Kurdan jî digehîne. Vêca aliyekî dijî gelî û kevneperest û terorîst ku rehmê bi jin û zarokan û heya bi cihên pîroz ê xelkê Kurdistanê nake, û şerê li dijî Kurdistan û azadîxwazan û tewahiya hêzên neteweperwer ragehandiye, lewra PDKÎ ew helwesta ku girt, weke erkeke neteweyî û hizra mirovdostiya xwe zanî, û ragehand ku heke daxwaz lê bihê kirin, eva em amade ne ku di vî şerî de beşdar bin û ya ku dikeve ser milên me, em cîbicî bikin.

Dema ku aliyekî pêwendîdar daxwaz kir, di demeke kin de, me karî ku hêzeke berçav organîze bikin, û ji bo çeperên şer bişînin. Diyar e ku hêzên PDKÎ di warê hejmar de li çav hêzên hikûmeta Herêma Kurdistanê kêm bûn. Lê hêzeke serûber û teyar bi çekên sivik û nîve qurs, û moraleke yekcar bilind bû. Herwisa ji bo me gellek zehmet bû ku di nav refên PDKÎ de em bêjin hinek kadr û pêşmergeyan ku di qonaxa duyemîn de hûnê herin şer. Hemû hêza PDKÎ ji pêşmerge û kadr û heya endamên rêberî û endamên rêkxistina PDKÎ li Herêma Kurdistanê û heya li derveyî welat jî, ragehandin ku amade ne di demeke kurt de, hekî PDKÎ îznê bide vegerin Herêma Kurdistanê, û di şerê man û hebûna Hikûmeta Herêma Kurdistanê de beşdar bin, jiber ku niha hebûna Hikûmeta Herêmê bi hebûna her çar perçeyên Kurdistanê tê zanîn.

**Pirs: Rengvedana vê helwestê di navxwe û li cîhana derve de, hûn çawa dinirxînin?**

**Bersiv:** Bi raya min dengvedaneke gellek baş û di cihê xwe de bû. Neteweyek ku ew êrîşa ne rewa bi ser de hatibû sepandin, û man û nemana wê li derdorê dihate bihîstin, ji bo Kurd û partiyên Kurdî yên her çar perçeyên Kurdistanê bû heysiyeta neteweyî. Neteweya me ew hereket pê baş bû, û gellek pê dilxweş bû, jiber ku eva bo yekemîn car bû ku gelê Kurd bi vî rengî yekdeng û yekhelwest, bi yekîtiyeke neteweyî hate qadê, û ew hereket ji bo dost û dijminên Kurd çavnihêrnekirî bû.

Her ew bi hawar de hatina xortên Kurd bû ku dengvedana cîhanî û herêmî li pey xwe anî, û eva jî bo dijminên Kurdan çavnihêrnekirî nebû, lewra vira û wir û li dijî helwesta terorîstên DAÎŞ'ê welatên Ewropayî û Amerîkayê piştevaniya gelê Kurd kirin. Bi taybetî Komara Îslamiya Îranê nekarî ku bêdeng be, û gellek bi tundî û bê şermane, ew helwesta Amerîka û welatên Ewropayî şermezar kir, ku bi hawara Herêma Kurdistanê de hatine jiber ku rejîma Îranê di vê helwesta aliyên siyasî yên gelê me de, ku yekîtiyek di nav Kurdan de pêk hatibû, tirseke zaf hebû. Li helwesta xortên Kurd di Kurdistana Rojhilat de nihêrî, ku zêdetir ji sê dehikan e serkut û kuştin û girtin heye, û jêve bû ku gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat dest ji mafên xwe hilgirtiye, û bi tewahî li hemberî îradeya Komara Îslamiya Îranê de teslîm bûye.



## Birêz Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ:

Lê dema ku ew rewş hate pêş, berî hemiyan eva gelê Kurd ê Rojhilat bû ku bi coşeke bê hempa hate qadê. Eva ji bo rejîmê gellek metirsîdartir bû ji vê ku hêzên esmanî yên Amerîkayê qada şer bi qazanca pêşmergeyên Kurdistanê bombebaran dikirin.

**Pirs: Hêzên PDKÎ di qada şer de heya çi qasekî serkevtî bûn?**

**Bersiv:** Mixabin heya niha eşkere nine ku çima hêzên PDKÎ gellek zû daxwaz ji wan hate kirin ku vegerin bo binkeyên xwe, em hêvîdar in ku di pêşerojê de hinek bo me eşkere be. Lê di gel vê yekê jî karekî serkevtî bû, û biryareke şoreşgerane û neteweyî bû. Giring eva ye ku di vê dema kêm de, ku di bereyên şer de bûn, karîn ku derba xwe li dijmin bidin bi bê vê ku tu zirarekê bibînin. Lewra min jêve ye ku hêzên me gellek serkevtî bûn. Hekî demeke zêdetir di bereyên şer de maban, eva bi xatircemî ve bandora hêzên PDKÎ ji niha gellek berçavtir dibû, û bi berpirsatî ve dibêjim ku hêza me di şer de bi bandor dibû. Herwisa di nav gelê Kurd de jî bo pêkanîna yekdengiyê bandoreke zaf hebû.

**Pirs: Hêza PDKÎ çima di vê heyama kêm de vegeriya nav baregehên PDKÎ de, û bereyên şer bi cih hêla?**

**Bersiv:** Her wek pêştir me bas kir, carê ji bo me eşkere nine ku çima biryara zû vegeriyanê bi PDKÎ hate ragehandin. Lê me pêştir jî ragehandibû ku hekî daxwaz ji me bihê kirin, em amade ne ku herin bereyên şer de, û daxwaz ji me hate kirin û em jî çûn. Di rastî de her wisa ye jî, dema ku em çûn weke hêza ser bi Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê em çûn, wate em çûne jêr fermana fermandariya Hêza Pêşmergeyên ser bi Wezareta Pêşmerge ya Herêma Kurdistanê.

Lewra her çi ku bi qazanca başûra Kuirdistanê be, me kir. Gotin werin bo bereyên şer, em jî çûn, û piştre spasiya me kirin û ragehandin ku bereyên şer bi cih bihêlin, eva em jî vegeriyan. Me hez dikir ku zêdetir li wir maban, lê serkirdayetiya Kurd di başûra Kurdistanê de bixwe baştir dizanin ku berjewendiya Herêma Kurdistanê di çi de ye, û em di nav karên wan de destêwerdanê nakin.

# Husên Mihemedzade kurê Zirar naskirî bi Husên Mela Zirar, sala 1349 (1970) li bajarê Serdeştê ji dayîk bûye.



**Husên Mihemedzade bi malbata xwe re, Kurdistana Başûr**

## H: Arif Vêlzî

Husên Mela Zirar nasyariya xwe bi PDKÎ re bi vî rengî tîne ziman: “Sala 1367 (1988), di gel çend hevalên xwe bi navên Mehmûd Ehmediyan, Mihemed Îsmaîlî û şehîd Mensûr Rehîmî ku her sê jî endamên PDKÎ bûn û karê hizbî di navxwe de dikirin, di bajarê Miyandoawê de me ders dixwend. Ew sê heval di gel vê ku ders dixwandin, hevdem karê hizbî dikirin, û em jî fêrî karê hizbî dikirin. Piştî heyamekê Mehmûd Ehmediyan û Şehîd Mensûr Rehîmî, Kurdistana Rojhilat bi cih hêlan û bi awayekî fermî tevlî refên PDKÎ bûn. Ez û çend hevalên din bo birêvebirina karên hizbî di navxwe de, me cihê wan girt. Bi giştî eva destpêkek bû ji bo min bo nasyariya di gel PDKÎ”.

Navbirî çawaniya hatina xwe bo nav refên PDKÎ bi vî rengî tîne ziman: “Piştî derbazbûna nêzîk bi salekê bi ser karê teşkîlatî di navxwe de, min biryar da ku tevlî refên PDKÎ bibim û bibim pêşmerge. Lewra di 23.03.1369 (1990), ez ji sînorî Qasime reş re derbaz bûm, û hatim bo Nokan, û piştre çûme Sonê, ku wê demê lika duyemîn ya hêza Giyareng li wir bû. Her wê rojê, piştînîvro ez birim komîteya şaristana Serdeşt, li Kune marê. Piştî sê rojan bi bê dîtina dewreyeke fêrgehê, ez di lika sê û li pela Şehîd Se’dûn Maraxanî de hatim bi cih kirin. Ji wê rojê şûnde, min çeka şerefa pêşmergatiyê kiriye milên xwe de, û heya niha bi bê rawestiyan li ser xebat û pêşmergatiya xwe berdewam im.

Husên Mela Zirar roja herî xweş ya pêşmergatiya xwe weha tîne ziman: “Roja 12.11.1371 (1993)’an, nêzîk bi 80 kes ji pêşmergeyên hêza Giyareng bi tirombêlên PDKÎ em çûne gundê Meznawê ya ser bi herêma Alana Serdeştê. Em şevê çûne gundê Bêjwê, û sibehiyê hêza Komîteya Şaristana Giyareng hatibû organîzekirin û xwe ji bo şer berhev kiribûn. Doşke û Bîkîsî di cihê xwe de hatibûn danîn. Em 24 kes weke tîma êrîşkar hatibûn organîzekirin, û me sibehiyê zû êrîş bo ser gordana Bêjwê dest pê kir. Piştî çar demjimêran şer û berxwedaniya hêzên rejîmê, me gordan girt. 35 kuştî û 35 dîlên şer ketin destên me de.

Lê mixabin di vî şerî de Xidir Reşe Hermêyî û Îsmaîl Mihemed Penah hatin şehîdkirin, û tevlî karwanê nemiran bûn. Ew serkevtin gellek dengvedana wê hebû, û ez gellek bi vê serkevtinê kêfxweş bûm. Jiber ku pilana lêdana wê gordanê, di nav hêz û komîteyê de bilav bibû. Vêca xweşiya wê, di wir de bû ku ew qas bawerî û nihênîparêzî di nav hêz û komîteyê de zêde bû, ku piştî hefteyekê jî nûçeya lêdana gordanê negihîştibû Komara Îslamiya Îranê.

Husên Mela Zirar roja herî nexweş ya dema pêşmergatiya xwe wiha tîne ziman: “06.051369 (1990)’an, hêz û komîteya Şaraistana Serdeştê li ser vê yekê sax bûn ku li ser pira Şîwe Birahîman, operasyoneke sê alî pêk bînin, (Pira Şîwe Birahîman, Deşta Keçelê, û nav bajar). Em 18 pêşmerge çûn û em bûne sê tîmên şeş kesî, û hevdem me ew sê cih dane ber gulleyan, me li wir şerê xwe kir û di nav gund de em mijûlî nanxwarinê bûn ku 13 tirombêl hatin, û piştî çend caran êrîşên wê hêzê, me bi berdewamî êrîşên wan têk birin, û bi giştî wan bi dehan kuştî dan.

Êvarî hat, û dema vekişiyana me bû, di dema vekişiyanê de em ketin nav daveke mezin de, û piştî şer û berxwedaneke mezin, hevalê me Xalid Tiwana birîndar bû, û bi bê vê ku em bizanin, me ew bi cih hêla. Piştî demekê ku me zanî, em vegeriyan lê me ew nedît. Jiber ku wî bi birîndarî xwe kişandibû qeraxa rê, û mixabin her li wir jî şehîd bibû. Eva roja herî nexweş ya jiyana min bû, jiber ku şehîd Xalid fermande û hevalê min bû.

Husên Mela Zirar derheq pêkanîna jiyana xwe ya hevpar wiha got: “Li binkeya PDKÎ di Raniyê de, di gel Seyran Pîrotî nasyar bûm, û roja 25.09.1975’an di kempa Dêgele de, me pêkve jiyana hevpar pêk anî, û berhema vê jiyana me, sê keç û kurek in.

Husên Mela Zirar bi şandina peyamekê bo xelkê kurdistanê dawî bi hevpeyvîna xwe tîne: “Daxwazê ji hemû wan kesên ku dilê wan bo berjewendiya gelê Kurd lê dide dikim, ku hander bin bo perwerdeya ciwanan, bona vê ku di pêşerojê de bikarin parêzerên mafên neteweyî bin, ku eva jî emegnasî ye bo wan kes û malbatan ku di vê pêxemê de şehîd dane, û yan hezkiriyên wan di nav reşçalên rejîmê de êş û azarê dikişînin, û ya malbatên wan kadr û pêşmergeyan ku her niha jî li ser vê rêbazê berdewam in, û di dawiyê de daxwazê li wan dikim, ku bi tu awayî bi fînd û fêlên Komara slamî nehêne xapandin, û xwe li madeyên hişber nedin”.

# Alîkariyên ji bo xelkê Şingalê












A:Kamyar

**Destê alîkariyê çiqas rehmîn e**

Carek din gelê me li Kurdistana Rojhilat weke berê selimand ku, rast e Şingalê bi sedan kîlometran ji wan dûr e, lê her bi germî keç û xort, û pîr û jin û zarokên Şingalê li hembêz digire, û bi hemû awayekî û li her gund û bajarekî, serbarê xirabiya rewşa aboriya xelkê Îranê bi giştî, û xelkê Kurdistana Rojhilat bitaybetî, alîkariyên curbicur bo awareyên êrîşa DAÎŞ'ê kom kirine.

Gelê me li Kurdistana Rojhilat bi hemû ol û mesebekê ve bi pêkanîna kempêyn û nawendên komkirina alîkariyên madî û xwardemenî û dapoşînê li seranserê Kurdistanê, nîşan dan ku hekî kêm jî be, lê armanca wan ev e ku xwe di êş û elema birayên Êzidî de pişikdar dizane, û bi qasê dilopekê jî be, ji behra karesata ku bi serê wan de hatî, kêm bike.

Bajarên wek Kirmaşan bi giştî û bitaybetî gelê me yê peyrewê ola Yarisan li wî barajî û herweha bajarên Rowanser û Cowanro û Serdeşt û Bîcar û Kamyaran û Merîwan û Seqiz û Dîwandere û Urmiye û gellek bajar û gundên din, alîkariyên xwe gehandin cihên taybet ên komkrina alîkariyan, da ku bigehînin destê gelê me li Şingalê.

Her weke di wêneyan de dixûye, heya zarokên Kurdistana Rojhilat jî bi bexşîna kinc û guharên xwe û herweha bûk û zava jî di roja zewicîna xwe de, bi pêşkêşkirina zêrên bûkîniya xwe û alikariyên madî, weke koreva sala 1991'an, xweşiyên xwe tevî gelê me yê Êzidî parve kirin.

# Li Îranê ziman û wêjeya kurdî bi fermî wek waneyeke zanîngehan hat pesendkirin




## Sine-Zanîngeha Kurdistanê

Sine (Rûdaw) – Wezareta Zanistî ya Îranê bi fermî ziman û wêjeya kurdî wek waneyekê di hemû zanîngehên wî welatî de pesend kir.

Alîkarê Perwerdeyê yê Zanîngeha Kurdistanê ya bajarê Sine li Rojhilata Kurdistanê, Qurban Elî Sadiqî di civîneke rojnamevaniyê de eşkere kir, ku piştî gellek hewl û xebatên Zanîngeha Kurdistanê, Wezareta Zanistî ya Îranê bi fermî ziman û wêjeya kurdî wekî waneyekê di hemû zanîngehên Îranê de pesend kir.

Qurban Elî Sadiqî anî ziman ku salên berê dihat gotin dê tiştekî wisa bê kirin, lê ev tenê bi qise dihat gotin, û piştre dihat jibîrkirin.

Sadiqî da zanîn ku komîteyek ji bona dariştin û danîna beş û dersên waneya ziman û wêjeya kurdî hatiye avakirin û wiha got:

"Di heyama sê salên borî de komîteya me karî hemû tiştî hazir bike, û pilan û pirojeya xwe pêşkêşî Wezareta Zanistiyê bike, û di dawiyê de jî wezaretê ev yek pesend kir û destûra wê da ku kurdî mîna waneyekê di hemû zanîngehên Îranê de bê gotin".

Alîkarê Perwerdeyê yê zanîngeha Kurdistanê ragihand, niha ne tenê li zanîngeha Kurdistanê ya bajarê Sine, lê di her zanîngeheke Îranê de ku şert û mercên pêwîst hebin, waneya kurdî dê were gotin.

Wî rayedarî li ser şert û mercên zanîngeha Kurdistanê ya Sine ji bo wergirtina xwendekarên waneya kurdî jî got, ji bo ku em bikarin waneya kurdî li zanîngehê bêjin, pêwîstiya me herî kêm bi sê mamostayan heye, lê mixabin vê gavê tene ji ber wê jî em niha nikarin xwendekaran werbigirin.

# Gotinên Navdaran



Yê ku peyayekî bipesinîne,mîna ku wî bifetisîne.

**Hz.Emer**

Peyayekî bi aqil hewcedarî lêborînê nabe.

**Emerson**

Li cihekî ku her tişt bi peran tê pîvan,edaleta civakî û rehetî nayê lidarxistin.

**SirThomasMore**

Pere,xulamekî baş,efendiyekî xerab e.

**Bacon**

Pere an belaya serê me ye,an jî xizmetkarê me ye.

**Horatius**

Cihê ku pere lê dipeyive,rastî bêdeng dimîne.

**Gotineke Rusî**

Ger hûn bixwazin hînî qîmeta peran bibin,wê çaxê deyn bikin.

**Franklin**

Hezkirina peran,destpêka hemû xerabiyan e.

**Incîl**

Gêjik jî carinan şîretên baş dikin.

**Boileau**

# Zimanê Kurdî

## Beşa 17. Dema axaftinê

### Di malbatê de jiyan




Diya min mamoste ye.



Mamê min berber e.



Bavê min nûjdar e.



## Beşa 18. Dema nivîsînê

Valahiyên li kêlekê dagirin

Diya min..........................................................................ye.

Bavê min..........................................................................e.

Meta min..........................................................................malê ye.

Mamê min..........................................................................e.

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

- Çume şikefteka tijî pêlav, êka wesa nebû bikime pê xo.

- Rezê bê ber.
- Dê bi hìr hìr, bav bi zirr zirr, kero bê qantir.

- Hêlîna leglegî, ne li berojî, ne li nizarî, hetav sipêdê
  didetê, ne êvarî.
- Derxûnê qunê, malê girarê.
- Distarokê bi kevlî ve.
  Distarokê, li nizarokê.

- Gur e, mirov dikare bigire.

- Çar çeqin çeqîn diken, du belbelîn diken, hizar û yek
  baweşîn diken.

- Li berojî ji tirsa dimirin, li nizarî ji birsa
  dimirin.
- Hevrist e, tat e rist e, xoş fêhris e.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (236)


**Çend dîmenên taybet bi rêûresma 25’ê Gelawêjê 69’mîn salvegera avakirina PDKÎ, Koye - Kurdistana Başûr**









